Ebdurehman Efîf
Hilbijartinin
ji
Zengildengê berbangê li ser zemînê û stêrkên êşnak di bin serê min de
Wergera ji erebî:
Ebdulrehman Efîf, Zîn Emîn û Ehmedê Huseynî






# Sûzanayê

*Werger :Ebdulrehman Efîf*

1

Hemû yên ji te hez dikin bi çavên min li te dinerin
Hemû yên ji te hez kirin bi destên min destên xwe digihînin te
Hemû yên ji min hez kirin bi destên te destên xwe digihînin min
Û ez kevirekî birîndar im li pêşiya te, ez kevirekî kevn im li pêşiya te...
kevirekî bi hezar aliyî li pêşiya te...

2

Veqetandî me ji çiyayekî tije bêdengiyeke fireh
Veqetandî ji girin tije bêdengiyeke mezin
Veqetandî ji ruhekî tije zengilên bêdeng
Hinek ji bayê êşê bes e
Ji bo ez bibim çiyayekî fireh
Tije bêdengiyeke fireh

3

Laşê te yê nayê nas kirin yê zihîf wek pelê darê
Tu li ser min dihêlî tê bê qey ez
Dar im

Laşê te yê nayê nas kirin yê zihîf tu li kêleka min dihêlî
tê bê qey ez dêyek im
Laşê te yê spî, yê zihîf tu li ser min dihêlî tê bê qey ez
ewrek im
û wek ewrekî tu min maçî dikî
Tê bê qey ez guldank im
Yan jî lawê te me ...
Yan ez jibîrkirina ko ji nivkê ve tê bîra te li vir ...
Wek laşekî zihîfî din...
Wek bêrîkirinekê xurtî din.

4

Hezkirina te bi şev maçî min dike, bê ko ez zanibim
Destên min dihesirîne  bê ko ez zanibim
Hezkirina te di daristanê de dimeşe bi tenê,  ji bo li nêzîkî
hêlanan bigihê min
Ba li porê wê yê kurt dixe
Hezkirina te bi şev maçî min dike bê ko ez zanibim
li min dinere bê ko ez zanibim
Hezkirina te carna ji te bêtir ji min hez dike
Naxwaze dev ji min berde ji te bêtir
şevekê dirêj min maçî dike
û te ji bîra dike

5

çilo tê bibe wextekî çûyî ji min re

6

Tama devê te gulek mezin e

<u>7</u>

Sûzanayê kenekî hêdî hêdî wek fêkiyekî distewe
Kevirekî boz e li ser kêleka devê min
Pelekî fireh ji ba
Destek berî min ji xew radibe û devekî kur maçî min dike
Ruhniya ko çayê çêdike û rûdinê ji bo tiliyên min ruhnî bike
Pozê hestiyên min bêhn dike
Giyanhevek e bi salên ji maçîkirinan pê tê kêf kirin.

# Ji bo Kirsty Hattrell

1.

**Hevdîtina xatirxwestinê**

Paul Celan li belkonê rûnişt û ew herdu gotin ji bo
Lêvên di şekirê xwe de gotin
Û min bi biçûkbûnekê li çavên wî nerî
Min êş û birînên xwe nas dikirin û ew jî li erdê rûdiniştin
bi biçûkbûnekê

Çilo ezê karibim pesnê dengê te bidim û hew ez du rojan
pê ştexilîm
Û destên te yên  bi hindirê min lîstin û tevhev kirin
Hew du rojan …

2.

**Metbexa min**

Tu wek biçûkkeçikekê rûnişt
wek xwiha min û tu li hêviya min ma, ko ez tiştekî
bibêjim
Do her tişt hatibû gotin
û bihevşabûna laşiyane û çav bi razîbûna xwe ya
hevraseriyê
Destdirêjkirina nermiyane bi serê tiliyan bi aliyê laşê te
de û hinekî şemitandina
nav pêsîran
Di wê bêxewşevê de
Û heyv – wextê em nêzîkî hev dibûn bi
xerîbtirzaroktiyekê
Em nehewcebûn bi hev re razên
Bi macîkirinan tenê qayîl bûn
wek xwih û biran .

3.

**Roja yekşemê**

Em negîhan hev ko em xatir ji hev bixwazin
Û lêvên me digihên hev û li dora xwe dinerin
Te destên xwe bi lepikan veşartibûn
Û porê te ew jî şiyar bû
Û nigên te disekinin û ji min hez dikin
û xwîna te dibê: na
û devê te dide
û tiştê maye yê hindik di me herdiwan de bang dike
û em wek miriyan- belkî- yan rastkesan
ji xwe re deng nakin.

# ji her ştexaliyê

Hema tenê te tayek li ser lêvên min bihişta
Hema tenê te havînek xwe yî taybet di min de
bişkenanda!
Hema tenê tu di tiliyên min de bima
Hema tenê te sibehek xemgîn ji bo laşê min î mirî bistira
Û tu biçiwa.

Hema tenê
Wê gula te bêhna xwe li ser hawirdorê derxista
Hema tenê hinekî wê bêdengiya te bihata tehmûl kirin
aniha û sibe
Û belkî min te carekê din bidîta.

Hema tenê tê qeyikek jihevketî li odê bihşta

Hema tenê
Minê  li ser werîsê di navbera me de qetiyayî gavek û
didu bavêta

Hema tenê
Ezê niha xurtir bama û xwestina min wê wek bazekî spî
ba

Hema tenê
Tê li ser derncên dawî hêdî ba

Hema tenê  wê hinek mifte şikestî bana
Û minê te bi hinek mûmên mayî û kursiyekê
ko xwe dida ber tenêbûna te bidîta

Û minê hema tenê ji te hez kiriba
Ji hemû wextên çûyî bêtir
Û hindiktir ji her
ştexaliyê .

# Û min ew dişewitî li wir hişt

Çawa ezê vî bayî
yê ko xwe bi dilê min ve wek kulîlkan girêdaye belawela bikim?
Û ez li ser derenca xweşik danîm, derenca piştînîro,
û ez li nêzîkî bajar danîm, û ez li nêzîkî destên ewr danîm,
lê wilo dûr...
çawa ezê nerînê nas bikim, pençerê vekim, bistirêm, ezê çawa bibînim?

Wê havîn min wek hêlanekê tije zarok bavê ser gihayê lawaz, û minminîkên şiyar mane, wê li dora hestiyên laşê min bifirin, û wê wan nas nekin...
Wê dar li roja çêbûna min bipirsin , wê pisîk nas bikin,
ko ez ji miletekî din im, kûçik wê min bêhn bikin û herin...
Xwedayên bi aqilê xwe yî  bê his û deng li ser kursiyên perçên laşê min rûniştî,
dixwazin bigirîn; lê ez li hindirê çavên wan dinerim.
Destên min, yên bi hawirdora rihniyê ve girêdayî, herdu çavên min, yên wek kuzekî avê yî qizêz ;
di demeke çûyî de pêş ve tên,
li min digerin.
Laşê min xwe tije fikir û raman dike û nema kare bifire,
laşê min gulistana xwe winda dike... Tiştekî nake,
bendî yê ko emran lê bike.. pir bi êş e.. pir bi êş.

Ji do de me ji bîra kiribû, ko em destên xwe jêbikin û hez bikin,
me ji bîra kiribû, ko dilên xwe bişkînin û hez bikin,

me ji bîra kiribû, ko em li ezîmetekê din in,
me ji bîra kiribû, ko ba ne bayê me ye, heta ko em karibin bêhna xwe derxin.

Do bû, ko xaniyên li ser birûwan û mijankan hatibûn rahiştin, yên li ser sîka westbûna me ya demûş, derbas bûn û çûn.
Di wan de xelkinan xatir ji min dixwest,û di tirban de winda dibûn.
Xwelî li min be... tirbên wan di dilê min de ne.

Çawa ezê karibim te ji bîra bikim, hey laşê xweşik, yê wek laşê min?
Te ez îro şiyar kirim û do,
tu li kêleka min bû wextê ez razam û aniha ez dibînim, ko tu xemgînyê dixwî ji bo min...
Te ez îro şiyar kirim û do, û berî salekê û berî du salan
Te dixwest ko tu maçî lêvên min bikî, lê te fedî dikir, û te dixwest di
nav cê min de razê, lê te fedî dikir, û bê hemdî xwe te destên xwe avêtin
ser destê min,
destên te gelek dil bûn,
giş li ber deriyan û li ser cadan û kêlekên minaran ketin.
Te ez îro şiyar kirim û berî wê tu çû, te xwest ko tu ji min re bêjî bi xatrê te,
lê te negot, ji ber te dixwest ko tu bimînî.
Û dilê te nêzîkî min bû, min ew bêhn dikir... dilê te wek gulekê nêzîkî min bû, min ew bêhn dikir... min dixwest wî ji xwe re rakim, lê te got:
na.
Çawa ezê karibim te ji bîra bikim, hey laşê xweşik, yê wek laşê min?

Û me go: ew rok şepyek e, û wextê em mezin bûn ew şepî jî mezin bû,
û yên dilîstin hevalên me yên zarok bûn,
xwe di ser çem re diqevastin, bawer dikirin ko çem kalkê wan e.
Me destê xwe di ser toza, ko ji lîska wan diket, dibir,
me destê xwe di ser çavên xwe re dibir,
me digo, divê em bilîzin... divê em li vir razên,
di bin lingên genim de û şilaya şevê.
Lê wilo dûr …

Wilo ko ez zengilê di hindirê kulilkan de, nema nas dikim ,
marên zêrîniyî sivik dinerin û radizên, bê ko guh li min bikin,
û cejn li ser xaniyan hêdî hêdî belav dibin,
lê dengê wan nayê min...
Dem di sîkê de dirêj dibe.. kurtir dikeve erdê de, û di wir de difetise .
Galgalên din, yên serxweşan li ser serjêkirina berxan di cejnê de,
dişemitin.
Bajar tije dengê daholan dibe... sofî derdikevin.
Bi salan baran xwe ji bîra dike,
û xwînek li her kêlekekê xwiya dibe.
Dilê min bi ser xwe de diperçiqe , hêdî hêdî di bin sîkan de direye.

Ka ji min re bêj:
Çawa ezê bi gîha re, yê li ser devê dîwaran,  dîsa xwe bidim nas kirin?
Çawa ezê destê xwe bidim minminîkan?

Çawa ezê bazdim heta ko çûk jî dîsa li dora min bazdin!?
Ka ji min re bêje:
Çawa ezê wî bayê, ko min rojekê ji rojan bêhn kiribû,
dîsa bêhn bikim?
Û min ew dişewitî li wir hişt,
û xwe dişewitim li vir hişt?

# Pêşiya zivistanê

Asoyê kesk di bin biruyên te de
Erda bi ezman çandî wê bilerize..

Kî darên pepûk di newalê de nas dike!
Kevirê zivistanê yê nêçîriya giyan dike...

Ew kesê pelên daran ji destên xwe vedike..!

Wê terektorek xemgîn derbas bibe û wê vê zivistanê cot bike
Û ji asoyê kesk wê hinek riyên wek vê êvara serxweş xwiya bikin
Ji xaniyekî ruhnî ta darin şevreş
Wê şev li kevirê xwe binere
Bêgûman wê rê şaş bike, wê tarîtir bibe...

Di bin biruyên te de, wê firinde bar bikin
Ezman wek rê ye…!

Li wir ko ruhnî bitemametî vedimirin
Piçikên dawî yên şînkahî herbiher bêdengtir dibin
Nenastir dibin …

Yê ko wê derbas be, wê her tiştê jê re hatiye amade kirin nas bike
Wê tiştan wek ko ew tên bipejirîne
Lê wê bixurtayî biêşe
Wê bi rastiya xwe wek cara pêşîn biêşe…

Wê li vir firindeyan wek şirîkên xwe nas bike û erdê wek bexçê xwe
Û ji her livekê re wê zimanek hebe
Û ko em çiqasî bendewariyê bikin jî
Em nawestin.

# Jibîrkirinek

*Ji erebî: Zîn Emîn*

Zirav bûne weke tayê bêrîkirinê
Jibîrkirin dîwarên ku jiyana wan ya yekemîn
Dorpêç kiribûn
Jibîrkirin tîpên resen yên ku bûbûne kenar ji Zimanê wan
û
Kolanên reş û tarî re
Jibîrkirin ken û girî
Jibîrkirin ku ji hevalên xwe re bibêjin: hûn bi xêr hatin û
xwe bitewînin
Da ku gulekê bêhn bikin û
Guh bidin keriyên xwe
Jibîrkirin amadekirina ji zivistanê re
Jibîrkirin ji dayikên xwe re bibêjin:
Dayê!!! Dilê min diêşe!
Bûn ku êdî nema dikarin rabin ji deştên kesk, yên kujer.

# Sed kiras

Çawa xwe qenc veşêrim di peyvan de
Da tu min bibînî?
Çawa bêdengiya xwe vêxînim, weke ku di devê min de
birîndarek be?
Çawa derbasî pelên xewê bibim, da te bikim xewa xwe?
Çawa bimeşim û di hemêza min de gul?
Da ku tu min biçinî bi destên xwe!
Çawa xwe bikujim di navên te de
Da her tu binivîsî min?
Çawa te bibînim di eynikekê de ku di laşê min de şikestî
be?
Tu sed destên spehî yî, sed kirasî tu, sed bayên ku hinekî
kiras hildidin.

# Çivîk û helbestvan

Bager wê min bavêje dilê xwe
Wê dar gumlekê min ji min bistînin
Çivîk, wê yek perîkê bide min
Demsalên mê, wê gelekî min ramûsin
Bêdengî keçekê zêrîn wê bide min
Û sûkên derengmayî wê têlekê dawî bidin min
Ezê meyxaneyan bidim zengelorka xwe
Hêlînên ku me di berfê de çêkiribûn
Wê hêlînên xwe bidin me
Havîn wê meyweyên xwe bi ser min de dawerîne
Û ez… rêyên teng im di helbestan de!

# Helbestên Hayko

*Werger:Ehmed Huseynî*

1
Qûm di lingan de
Û di dil de stranên hechecîkan
Yê evîndar bi rê dikeve.

2

nexwe ez dê te ji balendeyên biyanî û ji şûnewaran re bihêlim
Ez dê te di êşên seqem û
Bêrîkirinê de bihêlim
Te dihêlim.

3
Di dûrahiyê de; rengê wê kesk e
Dûrahiya ko rojekê ji rojan
Bager durust kiribû
Û rojekê ji rojan jî
Ew dûrahî mîna bagerê, çû.

4
Di navbera bayê gundan de binavbûyî
Demê zeft dikim
Ronahî jî rê dide min da ko
Berbi gavên te yên reviyayî de biçim...

5
Erê erê hey şêxê şîn
Wî pîroz bike

Rûyê wî jî bi stêrkên sivik
Şil bike…

6

Neko kin diçe
Lê şikestî
Neko vemirî diçe
Lê sivik

7

Li vir, em bi hev re rûniştin
Li vir, me lêvên xwe vêxistin
Li vir, me cigere bi dijwarî kişandin
Dûman dibû bajarên koçbariya me
Koçbariya ko di destê sibê de dest pê dikir…

8

Li bazaran têra xwe qîriyan û bi şevê razan
Û wexta ko li ser çira jorîn navine lerizîn
Vegeriyan malê
Barkirî vegeriyan
Têra xwe jiyan
Û mîna tayê guhkê şeytên
Vekişiyan…

9
Ji gumlekên xwe direvin
Û xwe di nameyan de vedişêrin…

10

Du hesp
Şevbuhêrka xwe
Li ber serê êşa min diqedînin…

11

Eva rawestiyayî kî ye?
Ew stêrkên çelmisî yên li ser
Rûyê te
Çi ne ?

12

Ma dê çi bi serê van pileyên pir bê
Eger berbi destê dayika min ve hilkişin?
Ma dê çi bi serê van pileyên pir bê
Eger berbi birayê min ve biçin
Ez dê wî himbêz bikim
Min bêriya kurtepeyvên me kiriye
Min bêriya nepoxên zaroktiyê
Û pirên bajêr kiriye.

13

Ho qiralê çînê!
Wek şervanekî
Ji leşkeriya bakur têm
Hêdî hêdî, serçavka Amûdê hiltînim.
Û piço piço derbasî dergeh dibim…

14

Mîna peravan min ji te re distira
Min li dergehê şin dixist
Sîbera te dihat
Hîzar û masiyek bi ser min de
Avêtin û çû..

15

Ma gelo ez stêrkekê
Deynim ser birîna xwe
Û razêm?!!